## Pêşnimêjê Qumê, rexne ji deshilata Îranê girt

**Pêşnimêjê bajarê Qumê, Seyîd Mihemed Seîdî, di axaftina xwe ya roja Înê de rexne ji deshilata Komara Îslamî girt û got; beşek ji giraniya di welatê me de, vedigere ser helawsana (teweroma) cîhanî, lê beşa din vedigere ser birêvebirina xirap a dewletê.**

Ew gotinên navbirî di demekê de ne, ku ji aliyekê ve hinek ji karbidestên Komara Îslamê rewşa aloz û xirap a abûrî û giraniya di welat de înkar dikin, û ji aliyê din ve kesên weke pêşnimêjê bajarê Qumê rast dewletê wek sebebkarê giraniya di welat de dizane.

## 20 Milyon Dolar xelat bo eşkere kirina binpêkirina mafê mirov di Amerîka û Berîtanyayê de!

**Serbarê vê ku pitir ji 40 çalakên jin di warê mafê mirovan de û gelek cudabîrên din, di girtîgehên rejîma Îranê de ne, Komîsyona Parlementoya rejîmê biryara terxan kirina 20 Milyon Dolarî weke xelat ji bo eşkere kirina binpê kirina mafê mirovan di Amerîka û Berîtanyayê de pejirand.**

Fatimê Aliy Endama Firaksiyona heşt kesî a jinan di parlementoyê de got ku gelaleya han di destpêka parlemêntoya heşt , di Komisyona Ewlehiya Netewî de hat ber bas, lê dewletê di civîna heyeta Wezîran di meha derbasbûyî de biryara han pejirand.

## Hinek ji welatên Erebî Erebsatê baykot dikin

**Li gorî zanyariyan hijmerek ji welatên Erebî bi birêveberên Ereb sate ragehandine ku heke bêt û pêşiya weşana Erebsat nehê girtin, ewê baykotê bixin ser vê mahwareyê.**

Malpera "Mîdil Îst online" ji zarê berpirsyarê dezgeha ragehandinê a Behrînê ve ragehand ku kanala "Elalem" ji bilî bilavkirina vir û direvan tu tiştek din bilav nake.

Elalem ji aliyê hikumeta Îranê ve tê îdarekirin û karê wê tevdanîkarî di herêmê de bi qazancê rejîma Îranê ye.

## Helwesta Amerîka cihê şermezariyê ye

**Senatorê Amerîkî yê naskirî John McCain, ji hikûmeta Amerîka xwest ku çekan bide çalekvanên Sûriyê yên ku li dijî rejîma Esed şer dikin.**

John Mccain da xuyakirin ku, ji bo hilweşandina rejîma Sûriyê ev yek pêwiste.

John McCain got ku, helwesta Amerîka li himber bûyerên li Sûriyê çêdibe û xwîna tê herikandin şermezariyek e.

Di hevpeyvînekê de ligel bernama Face the Nation li televîzyona CBS, McCain vekirî got: Kesên ku li Sûriyê serhildanê dikin li hêviya desthilatdariya Amerîkaye ku çeka bide wan, hêza leşkerên azad pêwîstî li çek û arîkariyên Amerîka hene.

Wek tê zanîn heftiya borî McCain li gel hinek senatorên din li Turkiyê serdana kampên penaberên ji Sûriye hatî kir û li gor agahdariyan hevdîtine li gel berpirsên Artêşa Azad pêkanîbû. Rojevakurd

Rojev




# Rejîma Îranê ji lihevhatinek navikî çi bidest dixe?

Ji Farsî: Agirî

Patrîk Kilawson, karnasê meseleyên Rojhilata Navîn û ji birêveberên nawendek stratejîkî li dor meseleyên deverê li ser got û bêjên navikî ên Îranê analîz û şiroveyek li malpera wê nawendê de weşandiye û dibêje: Bi baldan bi dijberiyên Amerîka û Îranê li ser pirsên weke terorîzm li deverê û mafên mirov li Îranê de, Komara Îslamî a Îranê ji lihevhatinek navikî bi rojava re dê îmtiyaz û puanên aborî ên kin bidest bixe û Xamineyî jî nîgerane ku rejîma wî ji wan destkevtên biçûk, hezîne û têçûyek zaf bide.

Li gor wî, ger rejîma Îranê biryarê jî bigre ku li gera nû ya got û bêjên navikî de bi awayê micid ber bi lihevhatinê ve bimeşe, ya ku li hember de bidest dixe, tiştek gelek biçûk û kin e.

**Destkeftên aborî ên biçûk**

Gelek ji wan tehrîmên ku ji hêla Amerîka ve li ser hatine sepandin, ji derweyî pirograma navikî armancên din jî hebûne. Weke piştewaniya Îranê ji terorîzm yan binpêkirina eşkere ya mafê mirov li navxweyî Îranê de. Bo nimûne li yasaya pêwendîdar bi tehrîmên li ser banka Nawendî a Îranê ku ji hêla Obama ve li meha Şibatê de hat wajo kirin, hat gotin ku sedema wê cezayê, rola banka Nawendî û bankên din ên Îranê li veşartina dan û standinên xwe bi nawendên baykotkirî û rola wan li pûlşûyî û metirsiya wan li ser sîstema banka navnetewî re bûye, lewma tu yek ji wan bi lihevhatina li pirsa navikî re çareser nabin.

Ji hêla din ve ceribînan nîşan daye ku hikûmeta Amerîka heta eger biryarê jî bigre, tehrîm û cezayên aborî li ser welatan bi awayê qonax bi qonax û demdirêj kêm dike. Li ser Îranê jî niha gelek ji wan tehrîman bûne bi yasa, û herçend serokkomar dikare pêka berjewendî û ewlehiya netewî a Amerîkayê wan tehrîman mandel bike, lê guhertina wan yasayan li siyaseta navxweyî Amerîkayê de karek ne hêsan û gelek dijwar e.

Welatên din û bi taybetî Ewropa jî sedema wan tehrîm û cezayan, vedigerînin bo rewşa mafê mirov li Îranê de, lewma li nêrîna Ewropiyan de jî heta eger çareseriya pirsa navikî a Îranê jî bê kirin, dosyeya mafê mirov ku Îranê karnameyek xirab û reş têde heye, nahê daxistin.

Heya wî cihê ku pêwendî bi biryarname û tehrîmên Konseya Ewlekar li dijî Îranê ve heye, Amerîka wê hewil bide nehên betalkirin û dê her li cih de bihêle. Çûnkî Amerîka nîgerane ku Îran bi soz û peymanên xwe pabend û wefadar nemîne û paşan jî dîsan pesend kirina wan li konseya Ewlekar de karekî giran jêre dibe. Tenê renge bo midehekê bide sekinandin.

Lewma take puana ku Îran dikare ji lihevhatinê bigre, pêşîgirtina ji tehrîmên zêdetir e nek betalkirina tehrîman; Helbet eger lihev bên, nexa wê givaş û tehrîmên zêdetir li benda Îranê bin. Çûnkî gerra nû ya tehrîmên neftî li dijî Îranê li meha Hezîranê de dikewe kar.

**Nîgeraniyên Xamineyî**

Xamineyî, rêberê nizama Îranê hertim li ser vê eslê tekez kiriye ku lihevhatina li ser vê mijarê bi Amerîkayê re encamek wusa nabe, ji ber ku Waşington li bingeh de siyaseta guherandina rejîmê dişopîne û ger pirsa navikî jî çareser bibe, dê li pey hincetek din li dijî Îranê bona givaştinên zêdetir bigerin. Ew û berpirsiyarên din bi salane îdea dikin ku Amerîka ji riyên cur bi cur ve li pey herifandina rejîma Komara Îslamî ye. Nemaze xwenîşandanên piştî hilbijartina serkomariyê li sala 1388'an de bi pîlan û kumpiloya Rojava bona ''hiloşandina nerm''a rejîmê dan hesibandin.

Hewlidan ji bo razîkirina Xamineyî li vê derheqê de karekî dijwar e, ji ber ku ew ji puanên rojava zêdetir ji givaşên wan nîgeran e. Dijberiya eşkere a Xamineyî bi her terze pêwendî û lihevhatiên bi Amerîkayê re, li dîtingeha wî de gav avêtina ber bi sernişîviyek metirsîdar e. Lewma ew naxwaze lihevhatin çêbin.

**Madeyên navikî li hemberî pirograma navikî**

Renge girîngtirîn destkefta Îranê ji lihevhatina li dor kirîza navikî li biyava pirogramên navikî de be. Ew pirogram niha li piratîk de xala bihêz a Îranê ji bo her terze got û bêj û dan û standinekê ne. Bidest xistina rewatî û meşrûiyeta navnetewî ji bo parek ji vê pirogramê bo rejîma Îranê serketinek mezin dibe.

Renge Amerîka û hevalbendên rojavayî li hemberî hin garantiyan de amade bin domandina mehandina uraniyomê bi tîratiyek kêm li Îranê de bipejirînin ku destpêkirina wê mehandinê, seretaya vê kirîzê bû. Destkevta din a Îranê renge gef û operasiyonên nepenî û xirabkarane li dijî pirogramên navikî û leşkirî ên Îranê bê sekinandin.

Cuda ji wê ku lihevhatina bi ser kirîza navikî a Îranê çiqas cidî û tevalî ye, lê şik tune ku berjewendî û hêldayînên Amerîka û Îranê wê cudahiyên rijdtir hebin. Yek ji nimûneyên eyankerê vê dijberî û cudahiyê, dijberiya li ser Sûriyê û encama wê li navbera wan de ye. Eger Komara Îslamî xwaziyarê bidestxistina puanên zêdetir de ye, li hember de divê îmtiyazên zêdetir jî bide Amerîka û rojava.

# Îran mafyaya herî mezin a madeyên hişber



Ferşîd Neqşefken

Ligel vê çendê ku karbidestên rejîma Komara Îslamî ya Îranê xwe weke xebatkar û dijberên herî çalak ên ciddî ji bo berlêgirtina ji anîn û şandina madeyên bêhişker li wî welatî di asta cîhanê de didin zanîn, lê belgeyên WIKILIX'ê di sala borî û rapor û rewşa navxweye Îranê nîşan dide ku Sipaha Pasdarên Komara Îslamî ya Îranê yek ji şirîkên herî mezin ên mafya navdewletî ya qaçaxkirina madeyên hişber (narkotîk) e.

Li gor zaniyariyên belavkirî, yek ji bernameyên sereke yên Sipaha Pasdarên Îranê ji bo dabînkirina xercên mezin û çavkaniyên aborî yên xwe, qaçaxkirin madeyên bêhişker bi rêya Îranê ye bo Ewropa. Ligel ku Sipah wek saziyek leşkerî hemû aboriya Îranê xistiye destê xwe û rêve dibe. Ji ber ku bernameyên berfireh ên Sipaha Pasdaran ên leşkerî, sîxorîkirin di welatên din de û piştgirîkirina grûpên radîkal li herêmê û kontrolkirina navçeyên Îranê ku neteweyên Îranê têde dijîn û Kurdistan bi taybet, pêdivî bi xercên mezin heye û ev sazî wan mesrefên bêqas ji rêya qaçaxkirina madeyên hişber bidest tîne.

Parek ji van xercan terxan dike ji bo rêvebirina Hêza Besîc û rêxistina saziyên leşkerî û sîxorî yên girêdayî xwe ku li ser cadeyan û di nav civakê de nerazîbûn û meşan qir dikin û bi tûndûtûjtirîn awayan rûbirûyê xelkê dibin.

Bi vê mebestê Sipaha Pasdarên Îranê Firokexaneya Navneteweyî ya Xomeynî li Tehranê dagîr kir û rêve dibe. Li gor rapora televîzyona Almanya ya ZDF ku vîdeoya wê hat belavkirin, zêdeyî nîva madeyên hişber ku li Afganistanê tê çêkirin, ji aliyê Sipaha Pasdaran ve bi rêya Îranê bo welatên Ewropa tên şandin.

Di sala 2005'an de dewleta Ekvadorê ragehand, ku grûpek Îranî ya qaçaxkirina madeyên hişber binçav kiriye ku zêdeyî yek milyon dolar ji her barek madeyên bêhişker qezenc kiriye û ji sedî 70'ê sûdê vê digihe Hizbulaha Lubnanê. Lêkolînên piştre eşkere kirin ku Hizbulaha Lubnanê tenê yek ji şaxên navneteweyî yê Sipaha Pasdarên Îranê ye di warê qaçaxkirina madeyên hişber de li cîhanê.

Di salên borî de xebatên vê saziya leşkerî ya Îranê di warê qaçaxkirina madeyên hoşber bûye manşeta rûpelên rojnameyên cîhanê. Rojnameya Day Wellt, dahata Sipaha Pasdaran ji qaçaxkirina madeyên hişber bo Ewropa di salên de bêhtirî çendîn milyar Euro dibe.



Li gor raporek nehênî ya Balyozxaneya Amerîka li Azerbaycanê ya ku di Hezîrana 2009'an de hat weşandin, wiha hatiye: "Rêjeya madeyên bêhişker ên kifşkirî ji rêya Îran bo Ewropa bi vî awayî ye: Di sala 2006'an de 20 hezar kîlo heroyîn, di sê mehên destpêka sala 2008'an de, qasê 15 hezar kîlo û di sê mehên destpêka sala 2009'an de, qasê 59 hezar kîlo heroyîn bûye." Li gor vê raporê, şandina madeyên bêhişker bi rêya Azerbaycanê jî tên encamdan. Di raporeke dewleta Amerîka ji bo hikûmeta Bakû'yê, hatiye destnîşankirin ku hêzên ewlekariya rejîma Îranê bi alîkariya berpirsyarên Afgansitanê di qaçaxkirina madeyên hişber de beşdar in.

Ji ber rewşa jeopolotîk ya Îranê ku cîranê Afganistanê ye û li ser rêya tranzîtkirina madeyên hoşber bo Ewropa hilketiye, herdem û nemaze piştî ku Komara Îslamî hat ser desthilatê, Îran yek ji rêyên giring ên şandina û herwiha bikaranîn û kişandina madeyên bêhişker tê hesibandin.

Madeyên hişber bi awayekî gellek berfireh li Îranê tên bikaranîn. Bi taybet di 33 salên borî de ku Komara Îslamî hatiye ser kar, roj bi roj hejmara bikarhênerên madeyên hoşber zêde dibe. Ev yek di rewşekê de ye ku Rêveberê Giştî yê Pêşîgirtin ji Bikaranîna Madeyên Hişber di Wezareta Tenduristiya Îranê Mohsên Wezîriyan di sala 2005'an de ragehang ku 3 milyon û 700 hezar kes bengdarê madeyên bêhişker bûne. Lê ev rêje û statîstîk li gor pêvajoya berfireh a bikaranîna madeyên bêhişker li Îranê bêguman ber bi zêdebûnê çûye. Karnas û pisporên civakî rêjeya tûşbûn bi madeyên hişber li Îranê zêdeyî ji sedî 8'ê didin zanîn.

# Hûn derbarê Kurdên Îsraîlê de çi dizanin?

Ew der Îsraîl e,bi hezaran Îsraîlî hene ku dema tu kok û nasnameya wan jê pirs bikî, bilez û bi bê tu şik û gumanekê xwe Kurd didin naskirin. Lê heke hûn jê pirs bikin ku Kurdên kîderê, bersiv hinek cuda dixuyin. Hinek dibêjin jiber ku bavê bapîrê me Seqizî bûye, bes em jî Seqizî ne. Hinek dibêjin ku bapîr û dapîra me di dema zarokatiya xwe de di taxa Cihûyên Sinê li şeqama Sîros de dijyan, ku piştî wê çûne Tehranê, û di dehsala pêncî an şêstî a zayînî de hatine Îsraîlê. Hinek jî xwe wek Kurdên Kamyarana Îranê didin naskirin.

Gellek ji Kurdên Cihû ên parêzgeha Kurdistan û Kirmaşan û hermên bakûra rojawayê Îranê dema xwe çûne Tehranê, û beşek ji wan jî her di salên destpêka ragehandina serbixweyiya Îsraîlê çûne Îsraîlê, lê hinek jî hene ku berî serxwebûna Îsraîlê rû kirine wî welatî.

Li Îsraîlê de çalakên Kurd ên Cihû hene ku bona parastina zimanê Kurdî gellek hewil didin û bi vî zimanî helbest û sitranan distirin û heta ji xwe re radyoyek herêmî bi îmkanatên sade û kêm ava kirine û hewil didin ku di demek nêzîk de radyoya xwe bikin televîzyonek li ser setelaytê, da ku Kurdên li wir dijîn kok û binetara xwe û zimanê xwe ê şirîn ji bîr nekin.






Helbet gelek ji wan Kurdên Îsraîlî jî hene ku xwe wek Kurdê Zaxoyê li Kurdistana başûr didin naskirin.

Xelkê Kurdistanê jî ji Kurdên Îsraîlê û ji Îsraîliyan pirr hez dikin û bo selimandina vê rastiyê niha li başûra Kurdistanê de kovarekê bi navê Kurd-Îsraîl şap û bilav dikin. Bilav kirina kovarek weha jî serbarê vê yekê ye ku gellek caran birêveberên wê ji aliyê tundrewên Îslamî li Îraqê de gef ji wan hatine xwarin, û heta ketibe ber lêdanên tund û derbên kêran jî, û heta deshilatdarên Îranê jî bi tundî rexne li wan girtine û ew karê wan wek casûsiya bo Îsraîlê bi nav kirine.

Di rastî niha piştî vê ku Kurdên başûrê Kurdistanê, piştî êş û azara bêqas ku ji aliyê hikumetên yek li pey yekê ên dîktator li Îraqê de gihîştine mafê xwe û herêmek otonom ava kirine, Kurdên Îsraîlê jî ketine bin bandora vê herêma otonom, û berdewam kêfxweşiya xwe ji avakirina vê herêmê ku bûye herêma herî serkevtî, û herîbalkêş di rojhilata navîn de, tînin ziman.

BBC.co.uk/persian

# Cade û riyên ku mirin jê dibarin!

N: Neîme Dûstdar
W ji Farsî: Arif Velzî

Hejmara goriyên bûyerên tirafîkê di Îranê de ewqas zor in ku gelek kes dişibînin goriyên şer û bi wê re berhev didin. Çûnku li Îranê de hertim ev egera heye ku kes yan kesên ku dikewin rê û ban yan şeqamên Îranê, renge êdî tu car nevegerin, wate jiyana xwe wunda bike.

Derheq goriyên bûyerên hat û çûnê di Îranê de amarên curbicur tên ragehandin. Lê li gor amarên cîhanî, Îran yek ji 5 welatên cîhanê ye ku zortirîn gorî û qurbanî di meseleya rêk û cadeyan û bûyerên tirafîkê de heye.

Pêka çavkaniyan di 20 salên derbasbûyî de pitir ji nîv milyon kesan di bûyerên tirafîkê di Îranê de canê xwe ji dest dan û her salê jî zêdetir ji 700 hezar kes li wan bûyeran de birîndar yan seqet û kêmendam dibin.

Her çend piştî newroza îsal, fermanderê giştî yê hêza Întizamî ya Îranê ragehand ku rêjeya bûyerên hat û çûnê %15 daketiye, lê her piştî axavtina wî, Ehmed Şucaî, Serokê saziya Pizîşk Yasayî a Îranê regehand ku di navbera salên 1380'ê heya 1389'an de, bi giştî 241.236 kesan di bûyerên tirafîkê de canê xwe ji dest dane. Ew amar diselimîne ku her sal ji her sed hezar kesan, 35 kes di Îranê de li bûyerên tirafîkê de canê xwe ji dest didin.

**Ralî di cadeyên Îranê de**

Eşkere ye ku bûyerên tirafîkê ji sêkuçkeyekê pêk tên: Ajotvan, Tirombêl û Cade(rê). Bûyerên hat û çûnê di Îranê de him "Sextefzarî" û him jî "nermefazrî"in. Beşek ji wê vedigere ser ajotvanan û çanda ajotvaniyê li Îranê de, ku ajotvanên Îranî li dor bêdîqetî û tundajotinê de binav û deng in û gelek ji wan bawerî bi yasa û pirensîpên hat û çûnê tuninin û xwe li serweyî wan dizanin ku eva yek ji sedemên sereke ye.

**Du pêngav ber bi gelî ve**

Berpirsiyarên rejîmê îdea dikin ku hemû rê û cadeyên Îranê li gor standardên cîhanî hatine avakirin, lê gelek ji karnasên vê biyavê li ser vê baweriyê ne ku yek ji sedemên sereke ên zêde bûna bûyeran tirafîkê di Îranê de, ewle nebûna riyan e. Di Îranê de 80 hezar Km rêyên eslî û ferîî hene ku ji wê radeyê, 2000km azadrê ne û 5ookm jî li bin çêkirinê de ne.

Herweha li Îranê de cihên bûyerafir zaf in û serbarê destnîşan kirina wan, gavên hewce ji bo kêm kirina asta xeteriyê nahên avêtin.





Birêvebirina şaş ya pilanên avedaniyê sedemek din ji standart nebûna riyên Îranê ye. Ji ber nebûna çavdêrî yan çavdêriyek nedurust û nebûna çavdêrên pispor, gel ji nexşe û pilanan pêka xerîte û darêtina destpêkê nahên birêve birin û bûne sebebê metirsîdar bûna riyan.Herweha gelek ji rê û cade yan şeqamên Îranê tablo yan nîşaneyên huşdarîdanê tunin. Nebûn yan kêmbûna nawendên îmdad û îmkanat û alavên hevkarîkirinê li riyên çiyayî û çîrançep û qerebalix ên Îranê jî sedemek din e. Pêka çavkaniyan, îmkanatên orjansî û tîmên rizgarker û hawardeçûnê yên îmdadê li ser riyan tenê %10 a rêvî û musafiran li xwe digre.

Li Îranê de givaşên saziya standardê jî xwe têkilî lîstika neusûlî û nerikeberiya fabrîka û kompaniyên berhemhêner ên tirombêlan be û bi can û jiyana xelkê re bilîze.

Hewce ye ku kesek ji derveyî Îranê ajotvaniya bi otombîlek Îranî re ceribandibe heya ku hest bi ferq û ciyawaziyên wê bi yên biyanî re bike. Gelek ji alav û qete'yên esasî û sereke yên wê her li gava yekemîn de tûşî pirsgirêk û astengan dibin û kovalîtiya nebaş a wan îmkana lêkdan û mirina musafiran zêde kiriye. Çavdêriya bi ser pêvajoya berhemanîna wan utombîlan bi qasekê li xwarê ye ku nemaze çavdêr û pispor bi xwe jî bûne şirîk û hemdestê berhemanînê û ew pêvajoya xira, xirabtir kirine, rêxistina Standard jî nimûneya eşkere ye.

Tirombêlên berhema Îranê heta îmkanatên herî sade yên ewlehiyê jî tuninin, wekî stop (tormiz)a A.B.S, pereşot yan kîseyê hewa ji wan re nehatiye pêşbînî kirin. Kuvalîteya xirab ya wan jî bûye sedem ku bi derbeyek biçûk wergeriyên yan agir bigrin. Eva jî bimîne ku gelek ajotvanên din bi tirombêlên xwedî eyb ber bi cadeyên ku mirin jê dibarin diherikin.

Eve jî li halekê de ye ku berpirsiyarên Îranê li vê derheqê de gelek xemsar in û bi tiştek asayî nîşan didin. Bi taybetî Serok Komarê Îranê, Mehmûd Ehmedînejad di gotûbêja dawîn a xwe di sala 1390'an de li ser seferê û ewlebûna tirombêlan axivî û ragihand ku ew ewlebûn berî her tiştî vedigere ser ajotvan, piştre tirombêl û cadeyan .

Derheq tirombêlên nestandard jî daye zanîn ku bila kirryar ji wan kompaniyanan nekirin heya ku kuvalîtî û standarda xwe dibin jor: Eva jî çareser yan rêçareya serkomarrrrrrrr!!!!

## Facebook gefek micid, lê veşartî

**Hekêr li ser tora civakî a Facebookê, e-mailên keçikan hek dikin û di hember eşkerenekirina zaniyarî û nihêniyên taybetî ên wan de, daxwaza peywendiyên sîksî ji wan dikin.**

Lêkolerek Civaki li Bajarê Silêmaniyê dibêje ku, heya niha keysa pitir ji 10 keçan li ber destê me de ye, ku seba hekkirina wan ji aliyê hekêran ve, destdirêjiya cînsî û bêhurmetî bi wan hatiye kirin û jiyana hinek ji wan di metirsiyê de ye.

Beşdarên Facebook heya niha digîje 800 milyon kesî û rojê yek milyard caran beşdar serdana Facebookê dikin û herweha Berdevkê Facebookê Barî Sên dibêje ku em rojê 600 hezar hewlên hekkirinê pûç dikin.

## Li Kerkûkê piraniya jinên sunetkirî Kurd in

**Li gor lêkolînan % 38.2 ji jinên Bajarê Kerkûkê hatine Sunetkirin ku % 65.4 ji van jinan kurd in, û digel encamên pir xeter ên diyardeya han berbirû ne.**

Di lêkolînekî de ku ji aliyê saziya Wadî a Almanî û rêxistina Senterî Pena li bajarê Kerkûkê, li ser diyarda Sunetkirina jinan birêve çûye, eşkere bû ku jinên Ereb bi rêjeya % 25.7, û jinên Turkeman jî bi rêjeya %12.3 hatine sunetkirin.

Li gor amaran rêjeya % 40.9 ji Suniyan û, % 23.4 ji Şîeyan û % 42.9 ji Kakeyiyan regeza mê di nav xwe de sunet dikin. Lê di nava Kirîstiyanên Mesîhî de heya niha yek kes jî nehatiye sunetkirin.

# Bajarê Selmasê



Di serdemê kevin de Ermeniyan digotine cihê niha ê Selmasê, Kurd Çîya. Herweha navê niha ê Selmasê di zimanê Kurdî û bi zaravê Kurmancî "Selemast" bi wateya bayê hênik ê şefeqê ye, ku bi sebebê nêzîkiya bi behra Urmiyê hertim bayekî hêdî û hênik li wir tê.



Mecîd Cinîkanlû

Şaristana Selmasê bi rûberê 2882 Kîlometra çargoşe li bakûra rojhilatê kurdistanê hilketiye.

Li gorî serjimêriya sala 2005'an, ku ji aliyê dewleta Îranê ve hatiye encamdan, hijmara nîşteciyên bajarê selmasê digîje 180708 kesan, ku ji wan 91796 kes mêr in, û 88912 kes jî jin in.

Şaristana Selmasê li 8 herêmên bi navê: Kinarberoj, Çarî, Şîne Tal, Girdiyan, Şipîran, Kore Sunî, Lekistan û Humê pêk tê.

Ev herême ji aliyê bakûr ve tevî bajarê Xoyê, ji aliyê başûr ve tevî bajarê Urmiyê û ji aliyê rojava ve tevî bakûra Kurdistanê cîran e. Bajarê Selmasê bi rûberê 7 Kîlomêtra çargoşe navenda vî şaristanê ye.

Bajarê selmasê; yek ji bajarên herî ciwan û xweş yên rojhilata Kurdistanê û parêzgeha Urmiyê ye. Selmas dû beşên xwe yên serekî hene, beşek ku dibe navenda bajar û beşa din jî dibe beşa çiyayî, ku gelek daristan têde hene û gelek balkêş e. Beşek ji bajarê Selmasê dibêjnê Kitban, ku niha wekî herêmek dihête nasîn, di serdemê Hexamenşiyan de Selmas ser bi Ermenistanê dihate hesibandin û navê Zarwend danîbûne ser vê herêmê.

Mihemd Resûl Hawar di Pirtûka xwe a bi navê "Tevgera Netewî a Simkoyê Şikak"de dinvîse: Di serdemê kevin de Ermeniyan digotine cihê niha ê Selmasê, Kurd Çîya. Herweha navê niha ê Selmasê di zimanê Kurdî û bi zaravê Kurmancî "Selemast" bi wateya bayê hênik ê şefeqê ye, ku bi sebebê nêzîkiya bi behra Urmiyê hertim bayekî hêdî û hênik li wir tê.

Yaqut Hemewî gerîdeyê Ereb ku li sala 54'an a Heyvî de serdana vî bajarî kirîye, dibêje: Selmas xwediyê bazareke gelek xweş e. Mizgewtek di vî bajarî de heye ku bi keviran hatiye çêkirin û akinciyên bajar Kurd in.

Di serdemê Eşkaniyan de Selmas, herêmekî navbera Îran û Romê de bûye, lê piştî şikesta Xosroyê Eşkanî ev herêm kete ser hikûmeta Sasaniyan.

Yadigarek ji hikûmeta Sasaniyan li Çiyayê Pîrçawiş li ser rêya Urmiye–Selmas li nêzîk gundê Xan Textî bi cih maye ku nîgarê du kesan li ser wî kevrî hatiye kişandin, ku yek Erdeşîrê Sasanî û yê dinê Şapûrê kûrê wî ye.

Selmas ji ber ku cihê xwe yê stratêjî heye, û xwediyê daristanan û xwezaya xwe ya gelek xweş, û avek geleka zêde ye, bûye sedem ku xelik her ji kevin de, li vê herêmê de nîştecî bin. Selmas gelek caran ji encamê şerê navbera Îranê û welatê Rûmê û Osmanî û Rûsiya da hatiye şewitandin, ji ber ku nêzî wan welatan bûye. Li dema şerê Împiratoriya Sefewî û Osmanî da bajarê Selmasê gelek xisar dît, û li gorî gelek pirtûkan, ew bajar bi tewahî ji hêla Osmaniyan ve hatiye xirabkirin û şevitandin, û nîşteciyên Selmasê ber bi bajarên Urmiyê û Xoyê ve reviyane û li wan deran nîştecî bûne. Di sala 1920'î de, erdhejeke gelek mezin li wî bajarî çêbûye û xisarek gelek mezin gihandiye bajar. Padîşahê Êmpiratoriya Sasanî Şah Şahpûr girîngiyeka taybet daye bajarê Selmasê, û gelek cihê xweş têda ava kirine û navê bajar jî kiriye Şapûr. Ew nav heya dema şoreşa gelên Îranê jî, her wekî xwe ma. Lê belê dema melayên Îranê deselat bidestve girtin, navê gelek bajaran guherîn, û navê Şapûrê jî hate guherîn û bû Selmas.

Di vê herêmê de êlên Kurd yên Şikak, Donbolî, Celalî û Koresunî jiyanê dikin. Selmas xwediyê rolek berçav bûye di bizava rizgarîxwaziya gelê Kurd de û rejîma Îranê her dem hewil daye ku wî bajarî bixe bin kontirola xwe de, û li ber vê yekê Azerî li gelek cihên din anîne Selmasê, ku dijî kurdan bikar bînin, gelek erdê kurdan bi sedemên cuda ji wan hatine standin, û Azerî li selmasê dijî kurdan bikar anîne, niha li navenda bajarê Selmasê hijmareka Azerî nîştecî ne, lê piraniya herêmê Kurd in.

Selmas hertim û di dirêjiya dîrokê de li destê Kurdan de bûye û gelek caran xortên vê herêmê ji bo azadî û serxwebûna Kurdistanê xebatekî zaf kirine.

Simkoyê Şikak yek ji wan rêberên azadîxwaz yê Neteweya Kurd e ku bi salan ji bo vê armancê xebat kir û canê xwe di vê rêya pîroz de pêşkeşî neteweya xwe kir.

Piştî bidawîhatina şerê yekemîn ê cîhanî li salal 1914-1918'an piraniya neteweyên bindest ji xwe re welatên serbixwe ava kirin, lê wekî hertim dîrok dîsan bo Kurdan ducarî bû, û tenê neteweya Kurd bû ku negihîşt daxwazên xwe. Li herêma Selmasê piştî îxaneta dewleta Îranê û şehîdkirina Cewer axayê birayê mezin yê Simko, Simkoyê Şikak gehîşte desthilatê û bilez ji bo avakirina dewlata Kurdî hewil da, lê mixabin piştî 23 salan xebat û tekoşînê li sala 1930'î li bajarê Şinoyê de hat şehîdkirin.

Ji kesayetiyên herî naskirî yên herêma Selmasê, em dikarin îşarê bi: Mihemd axayê Şikak, Cewer axayê Şikak, Simkoyê Şikak, Emer xanê Şikak û ...hwd bikin.





**Barak Obama serkomarê DYA:**
" Me di gotûbêjên navikî de tu diyariyek nedaye Îranê. Ya ku bûye para rejîma Îranê, ew gemaro û tehrîmên herî tund in ku li mehên pêşiya me de çavnihêrê wan e, heke ew ji vê derfetê mifayê wernegrin".

**Birêz kekê Sidîq Derwîşî, endamê komîteya nawendî a PDKÎ gotûbêja vê carê a navikî weha şirove dike**:



Sidîq Derwîşî

" Di vê gotûbêja dawiyê a li ser pirsa navikî a Îranê, her du aliyan tenê karîn ku dem û wextê gotûbêjek din diyarî bikin û bi domandina gotûbêjê xweşbîn bin. Helbet berpirsyarên rejîma Îranê ragehandine ku ew mehandina %20 a Oranyomê wê tenê bo reaktora Tehran û reaktorek din wê bi kar bînin, lê bo cihên din ewê tenê Oranyoma %5.3 wê bikar bînin. Di rastî de rohn û zelalnebûna helwestên rejîma Îranê derheq bersivdana bi nîgeraniyên navnetewî, derkirina çavdêrên NY, gefxwarinên li Îsraîlê û welatên hevalbendê Amerîkayê, û axavtinên tundrewane ên rejîma Îranê heya niha jî nekariye ku nîgeraniyên navnetewî û herêmî kêm bike. Her bi vê sedemê welatek wek Îsraîlê şik û guman heye ji wan sozên ku Îran dide welatên 5+1. Lewra ew dixwazin ku rejîma Îranê usul û pirensîpên navnetewî, yasaya NPT, biparêze û berçav bigre, û li ser bingeha vê axavtina Xamineyî ku çêkirina çeka navikî li olê Îslamê de bi heram dizane, bimeşe û vê axavtinê di piratîkê de birêve bibe, û bi vî awayî ji nîgeraniyan kême bike. Bi giştî rejîma ji aliyekê ve dixwaze ku dem û wextê zêdebidest bîne, û zextên navnetewî li ser xwe kêm bike, û ji aliyek din ve rewşa aloz ya aboriya xwe baştir bike".

**Ehmedriza pûrdestan fermandê hêza bejahiyê a erteşa Îranê:**



" Erteşa me di gel hêzên din ên çekdar wê her gef û êrîşek ku aliyê xwe ê piratîkî û eynî hebe, wê bi awayê herî tund tepeser bike".

**Navbirî herweha gefxwarinên Ehmedriza Pûrdestan weha şirove dike**:
" Ew axavtinên tund ên berpirsyarên leşkerî û eqîdetî ên rejîma Îranê piştî hişdariyên tund ên Amerîka û bitaybetî Îsraîlê derheq îhtimala mifahwergirtina ji vebijêrka leşkerî wek rêçareya herî dawî bo kêşe û nakokiya di gel Îranê, û kiryarên leşkerî û dîplomasî ên Amerîkayê li herêmê de, hevdîtina Hîlarî Kilînton di gel Seûd Elfeysel wezîrê Karê Derve ê Erebistana Seûdî û axavtinê Hîlarî Kilnton derbarê cihgirkirina sekoya mûşekiya Amerîkayê li welatên Erebî ên kendawê û manovra esmaniya hewbeş a Amerîka û welatên navbirî bi beşdariya balafirhilgira "UBS întirprayz" û " USS Abraham Lînkoln", zêde bûye.
Rejîma ku di gel bereyek bihêz di asta navnetewî û herêmê de berbirû bûye, û ji aliyek din ve li encama zextên siyasî û aborî, heya qasekê neçar bi paşvekêşanaji helwest û şert û mercên xwe di warê destpêkirina gotûbêjên navikî bûye, bi wan gefxwarinan dixwaze ku tola vê şikesta xwe ya li hemberî rojawayiyan de veke".

**Ehmedriza Abidzade, golçiyê pêşîn ê tîma millî a Îranê**:



" piştî hevpeyvîna min ya bi rojnameyekê re, Dr. Mededî doz bi dijî min daye vekirin, û bi bêy vê ku ez hatibim agehdar kirin jî, di balafirgehê de pasporta min ji min sitandin û bi min ragehandin ku biryara qedexya çûne derve û 54 derbên şelaqan bo te hatiye birîn".



Rehîm Ehmedîpûr

**Birêz Rehîm rEhmadî herweha vê nûçeyê weha şirove dike**:
"Abidzade piştî Nasir Hicazî wek golçiyê herî baş di dîroka 92 salan ya fûtbola Îranê de tê hesibandin, lê bi sedema vê ku werzişvanekî xelkî ye, eva çendîn sal e ku jêre kêşa û arîşeyan pêk tînin. Dema ku Abidzade di maça di navbera Îran û hilbijardeya Çînê de piyê wî derbe xwar, birêveberên yaneya Îstiqlalê û federasyona fûtbolê amade nebûn ku xercê emeliyata piyê wî bidne Dr .Mededî. lewra Mohendis Abidînî û Elî Perwîn li ser hisaba xwe Abîdzade şandin Alman ji bo çareseriyê. Li gorî yasaya navdewletî Abîdzade mafê vê heye ku dozê bi dijî Mededî weke, jiber ku Mededî bi sedema vê emeliyata xirap ku li ser piyê wî kir, ew bo heyamekê ji cîhana fûtbolê dûr xist".

**Rîkardo Olîvra lîstikvanê Birizîlî di tîma Elcezîreya Îmaratê de**:




"ez naxwazim ku carek din bo maçê (pêşbirkêya topa pê) herim Îranê, jiber ku ew otêla ku dabûne me pirr xirap û pîs bû, û ji bo tîmek fûtbolê nedibû, herweha ew otobûsa ku dabûne me jî her bi vî rengî pîs bû û kursiyên wê şikestî bûn".

**Rêzdar Rehîm Ehmedî rojnamevanê werzişî axavtina Rîkardo Olîvra weha şirove dike**:

"Piştî sala 2005'an ku hilbijardeya tîma topa pê ya Alman bi gellek fûtbolîstên xwe ên navdar ve bo lîstikek dostane hate Îranê, êdî ti yane û hilbijardeyek amade nebû bi sedema qorixkirina medyayên sporê, îdama zarokên jêr hejde salî, û binpêkirina berdewam ya mafê mirovan li hember wergirtina pareyek zor jî di gel tîmên Îranê maça topa pê encam bidin.

Yaneya Elcezîre û yaneyên din ên welatên Erebî jî berdewam li dema maçên Asyayî de bi awayê herî baş mêhvandariya yaneyên Îranê kirine. Lê mêhvandariya xirap ya yaneya Îstiqlal bi dilê navbirî nebûye, û di rastî de ew şêwe mêhvandariya girêdayî bi destêwerdana rejîmê di nav karûbarênsporê û îdeolojiya rejîmê ve heye.



# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye
Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com






## 20 hezar mêrên pêgiran di Birîtanyayê de hene!



**Saziya xizmetkariyên Bêhdaşta Netewî ya Berîtanyayê, pêgiraniya 20 hezar mêran eşkere kir û ragehand ku wan mêran daxwaza wan xizmetkariyan kirine ku bo jinên pêgiran berçav hatiye girtin.**

Li gor vê nûçeyê pitir ji heşt hezar mêrên pêgiran, serdana pizîşkên pispor ên nexweşiyên jin û zayînê kirine.

## Kilîsaya Heftewan'ê di metirsiya nemanê de ye

**Li gorî zanyariyan Kilîsaya Heftewanê ku wek yek ji şûnwarên dîrokî ên bajarê Selmasê tê hesibandin tehlûkeya jinavçûnê li ser heye.**



Kilîsaya Heftewanê li gundê heftewan li sê kîlometriya başûra vî bajarî de hilketiye û ew gund xwediyê çend şûnwarên din ên dîrokî ye û kilîsaya Heftewan jî yek ji wan e.

Dîroka vê kilîsayê vedigere bo serdemê hikumeta Sefewiyan û li 19'ê Reşemeya sala 1380'î de ew kilîsa li rîzbenda şûnwarên millî ên Îranê de hatiye bicih kirin.

## Zarokek bi 6 piyan jidayîk bû



**Berî 6 hefteyan zarokek bi 6 piyan jidayîk dibe niha doktor hewl didin zarok vegerînin jiyaneke sirûştî.**

Malpera avesta nûçeyek weşand ku têde balê dikişîne ser vê yekê ku li Pakîstanê zarokek bi 6 piyan jidayîk bûye.

Li gor daxuyaniya Serokê Tendirustiya Enstîtuya Netewî ya Karaçî Cemal Riza dayî çapemeniyê, ev yek ji encama nexweşiya jenetîke di nava milyon kesên jidayîk dibin yek ji wan weha tê dinyayê.

Cemal Riza her weha got ku doktor di nava hewldanê de ne zarok ji vê rewşê xilas bikin û vegerînin jiyana sirûştî.

